

# BUROYA KURDÎ

# ya Pêwendî û Agahdariyê

**Bultena agahdariyê N° 157 –Gulan 2018**

Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 – 047 897 882

www.kurdishbureau.be kurdishbureau@scarlet. www.facebook.com/bureaukurde

## ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ

### *NÎSAN 2018*

**KONFÊRANS**

***22. 4. 2018: 120 salên Rojnamevaniya Kurdî***

**Rênas Newrozî,** nivîskar, kurteya 120 salên rojnamevaniya kurdî got:



Di 22. 04. 1898 de, yekemîn rojnameya kurdî, ya bi navê "Kurdistan", li Qahirê, li Misrê, ji aliyê Miqdad Midhet Bedir Xan, kurrê mîr Bedir Xan, ê navçeya Botan, a Kurdistana Tirkiyê, hat weşandin.

Piştre, li Tirkiyê, berê şerrê cihanê yê yekemîn, gelek rojname û kovarên kurdî li Istanbulê hatin weşandin. Piştî avabûna dewleta tirkî, zimanê kurdî hat qedexe kirin, û heta salên 1990, tu rojanme û kovareke kurdî ne hat weşandin. Nuha, li gel weşandina hin rojname û kovaran, gelek rojnamevanên kurd li zîndanê ne.

Li Kurdistana Îranê, yekemîn rojnameya kurdî, bi navê Temedun, di 1906 de hat weşandin. Di 1946 de, sala avabûna Komara Kurdî ya Mahabadê, çend rojname û kovarên kurdî hatin weşandin. Li gel qedexekirina zimanê kurdî, çend rojname û kovarên kurdî li hin bajar û zanîngehan hatin weşandin. Heta nuha, gelek rojnamevanên kurd hatin bi dar ve kirin (daleqandin).

Li Sûriyê, kovara yekmîn a bi zimanê kurdî, Hawar, di 1932 de hat weşandin. Ji 1959 de, gelek rojname û kovarên kurdî tên weşandin. Piraniya wan nêzîkî partî û rêxistinên kurdî ne.

Li Kurdistana Iraqê û li Iraqê, ji 1921 heta 1991, gelek rojname û kovarên kurdî hatin weşandin. Ji serhiladana 1991 li Kurdistanê de, gelek rojname û kovar tên weşandin.

Îro, rojnamevaniya kurdî gelek pêş de çûye. Ji 100 bêtir radyo û têlêvîzyonên kurdî hene. Facebook, Twitter û malperên entêrnêtê jî rewşa agahdarkirinê û ya rojnamevaniya kurdî gelek pêş de bir.

## BEŞDARBÛNA ÇALAKIYÊN RÊXISTINÊN DIN

### *26. 04. 2018: Pêşangeh*





Di çarçeveya Inter Festival de, li dêra Béguinage û bi alîkariya rêxistina Demos, wênekêşê (ressam) kurd **Kîto Sîno** berhemên xwe yên gelek bedew raxistin. Ew ji civandina hunerî ya jimareke mezzin ji pirtûkan, bi awayê kerpîçan, pêk hati bû. Ji bo wî, pirtûk, weka kerpîçan, mejiyê mirov ava dikin.

Kîto navê pêşangeha xwe kir "Porteboek", ango "Deriyê Pirtûkê". Wê 4 rojan ajot (dewam kir). Nêzîkî 400 kesan, ku ji wan wezîrê çandê yê flaman, Sven Gatz, seredana wê kir. Gelek ji wan bi çandê xerîk (mijûl) dibin.



Ev fêvstival her sal li bajarekî din dibe. Îsal, ew li 4 ciyan bû: Haren, Woluwé, Laken û navenda Bruksêlê.

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

## KURDISTANA TIRKIYÊ

**DÛMAHÎKA ŞERRÊ DI NAVBERA LEŞKERÊ TIRKÎ Û PKKÊ DE**

***Kurdistana Iraqê***
Ji bo şerkirina PKKê, leşkerê tirkî, bi kûrahiya 17 km, ket nav Kurdistana Iraqê. Ew tê de bi avakirina 3 bingehên leşkerî xerîk (mijûl) e. Birêvebirê bajarokê Sîndekanê daxuyand (îlan kir) ku nêzîkî 1.000 serbazên (esker) tirkî tê de bi cî bûne û ku ew naxwazin ku xwe jê bikişînin.

Di 10 Adar 2018 de, bi hêlîkoptêran, leşkerê tirkî dest bi şandina van serbazên (esker) navçeya Geverê, ya Kurdistana Tirkiyê, ber bi Biradostê, ya navçeya Hewlêrê, li Kurdistana Iraqê, kiri bû.

***Di 01 Nîsan de***, firokeyên leşkerî yên tirkî bajarokê Sîdekanê, yê navçeya Biradostê, bombe kir.

***Ji şeva 05 Nîsan 2018 heta 06 Nîsanê***, leşkerê tirkî bê rawestan navçeya Sîdekanê, li nêzîkî Hewlêrê, û ya Amedî bombe kirin. Ew bi kûrahiya 20 km ket nav Kurdistana Iraqê û li hin serên çiyayan bi cî bû. Ew, bê rawestan, bi vekirina, bi buldozêran, riyeke bejayî (erdî) li Kurdistana Iraqê xerîk (mijûl) e.

Li bajarokê Kanî Masî, yê girêdayî Amedî, vî leşkerî agir berda rûniştevanên sîvîl.
*(rudaw.net, 01, 02 û 06.04.2018)*

***Di 07 Nîsan de***, leşkerê tirkî cardin bi tundî bilindahiyên Robya, Pungistan, Pîr Ibrahîmpi, Kewerte û Robî, yên navçeya Sîdekanê, bombe kirin. Gund hatin vala kirin.
*(rudaw.net, 07.04.2018)*

***Di 07 Nîsan de jî***, leşkerê tirkî bajarokê Şêlandizê, yê girêdayî Amedî, yê parêzgeha Duhokê, bombe kir. 3 bira hatin kuştin.
*(rudaw.net, 14.04.2018)*

***Di 10 Nîsan de***, ji serê sibê de, firokeyên tirkî bajarokê Biradostê, yê girêdayî Sîdekanê, bombe kir. Di heman rojê de, serokê tirk, Recep Tayyıp Erdoğan, daxuyand ku ji destpêka van êrîşên leşkerê tirkî de heta nuha, 347 şervanên PKKê hatine kuştin.

Piştî êrîşên bê rawestan ên firokeyên tirkî li ser çend navçeyên Kurdistanê, çend sîvîl hatin kuştin. Li navçeya Duhokê, 362 gund rastî van pevçûnan dibin.
*(rudaw.net, 10 û 11.04.2018)*

***Di 24 Nîsan de***, firokeyên tirkî 9 bingehên PKKê, li navçeyên Zab, Gare, Avaşîn û Basê, bombe kirin.
*(rudaw.net, 25.04.2018)*

***Di 25 Nîsan de***, gundên Sore Dê Gelî Berdan, Zargelî, Dolî, Şawrê û Bokrîsanê, li nêzîkî çiyayê Qendîlê, bi tundî hatin bombe kirin. Leşkerê tirkî daxuyand ku 10 PKK hatin kuştin.
*(rudaw.net, 25.04.2018)*

***Di 27 Nîsan de***, şerrên tund di navbera PKKê û leşkerê tirkî de, li 5 gundên bajarokê Sîdekanê, yên navçeya Soranê, bûn. Gundî jê derketin û li Sîdekan û derdorên wê pena bûn.
*(rudaw.net, 27.04.2018)*

***Amed (Diyarbekir)***
***Di 25 Nîsan de***, pevçûn di navbera leşkerê tirkî û PKKê de li gundê Akçabudakê, yê bajarokê Licê, bûn. Serbazek (eskerek) hat kuştin û 4 jî birîndar bûn.
*(rudaw.net, 25.04.2018)*

***Qedexekirina hatûçûnê li Colemêrgê***
Parêzgarê (walî) Colemêrgê (Hakkari) 14 rojan qedexekirina hatûçûnê li navçeyê daxuyand (îlan kir). Ev yek ji bo dabînkirina (te'mînkirin)

ewlehiya (emniyyet) xelk di vê rewşa şerrê li dijî PKKê de.
*(rudaw.net, 24.04.2018)*

***Qedexekirina hatûçûnê li Amedê***
***Di 25 Nîsan 2018 de***, piştî pevçûnên di navbera leşkerê tirkî û PKKê de, parêzgarê Amedê (Diyarbekir) fermaneke nivîskî, ji bo qedexekirina hatûçûnê, heta fermaneke din, li 69 gundan, da.
*(rudaw.net, 25.04.2018)*

***Qedexekirina çalakiyan li Wanê***
Di çarçeveya rewşa awarte de, parêzgarê Wanê (Van) pêkanîna konfêransên çapemeniyê, xwepêşandan û civînan di ***28 û 29 Nîsan*** de qedexe kir.
*(rudaw.net, 28.04.2018)*

**5 KES LI URFA TÊN RAGIRTIN**
***Di 04 Nîsan 2018 de***, bi şev, li gundê Amara, yê bajarokê Xelfetî, hêzên ewlehiyê ketin nav mala Mehmet Öcalan, birayê serokê PKKê ku li zîndanê ye, Abdullah Öcalan, û 5 kes ragirtin. Ji wan, hev-serokê şaxa Riha (Urfa) ya Partiya Dêmokratîk a Gelan (DBP), Bekir Karakeçili.
*(rudaw.net, 04.04.2018)*

**722 KARMENDÊN AMEDÊ TÊN RAGIRTIN**



Di hefteyekê de, polîs 722 karmend, ku piraniya wan li şaredariyên bajarê Amedê (Diyarbekir) kar dikir, ragirtin. Sendîkaya Gelen-Iş wan diparêze.
*(rudaw.net, 05.04.2018)*

**PIŞTGIRIYA PARTIYÊN KURDÎ JI KESÊN RAGIRTÎ RE**
Piştî ragirtina van 722 karmendan, partiyên kurdî yên cihê piştgiriya xwe ji wan re nîşan da: Partiya Azadiya Kurdistan (PAK), Partiya Sosyalîst a Kurdistan (PSK), Partiya Azadî û Sosyalîsmê (OSP), Partiya Dêmokrat a Kurdistana Bakur (PDK-Bakur) û Tevgera Azadî.
*(rudaw.net, 10.04.2018)*

**DEMIRTAŞ CARDIN LI DADGEHÊ**
***Di 11 Nîsan de***, hev-serokê berê yê partiya kurdî HDP, Selahattin Demirtaş, ji zîndana Edirnê hat birin a Sincanê (parêzgeha Ankarê), ji bo ku derkeve ber dadgehê. Hin berpirsiyarên din ên vê partiyê jî amade bûn: Hev-serokê nuh ê HDP, Sezai Temelli; Pervin Buldan û parlementerên din ên vê partiyê.

Dozê 3 rojan ajot (dewam kir). Dadgehê doz paş de xist 18 Tîrmeh 2018 û biryar stend ku heta wê demê Demirtaş li zîndanê bimîne.

***Di 30 Nîsan de***, doza Demirtaş û ya parlementerê ji heman partiyê, Sırrı Sureya Önder, cardin li dadgeha Istanbulê bû. Ew bi kirina propaganda PKKê li Istanbulê, li Newroza 2013, hatin tawanbar kirin. Lê ji sedema tendurustiya xwe, Demirtaş nikari bû beşdarî wê bibe. Nêzîkî 100 parêzer (avukat), jimareke mezzin ji parlementer û alîgirên partiya HDP amade bûn.

Dozkarê komarê (procureur) 5 sal zîndan, ji bo *"propagandakirina rêxistineke têrrorîst"*, ji Demirtaş re xwest. Doz heta 8'ê Hezîranê hat paş de xistin.

Ji Çile 2017 de, ev her du tawanbar 3 caran hatin birin dadgehê.
*(rudaw.net, 11, 13 û 30.04.2018)*

**JINEK BI ZAROKÊ XWE RE TÊ ZÎNDAN KIRIN**
***Di 20 Nîsan 2018 de***, mamosteya jin Ayşe Çelik, tevî zarokê xwe yê 6 mehî, hat xistin zîndana Amedê (Diyarbekir), ji bo ku wê go: *"Divê ku zarok nemirin"* ! Wê ev yek, bi têlêfonê, ji bernameyeke têlêvîzyona tirkî re goti bû.

Hevoka (cumle) tam ev e: *"Ez ji bajarê Amedê me û li bajarê min şerr heye. Ez dixwazim ku şerr raweste û ku zarok nemirin"*.
*(rudaw.net, 20.04.2018)*

**ÎLANÊN BI KURDÎ TÊN RAKIRIN**
Li navçeya Amedê, nivîsên ku navên kuçe û riyan nîşan didin bi du zimanan, kurdî û tirkî, hati bûn nivîsîn. Lê, nuha, yên bi kurdî hatine rakirin.
*(rudaw.net, 13.04.2018)*

**PÊTROL LI AMEDÊ**
Şirketa ostralî ya pêtrolê, Trans Atlantic Exportation Mediterranean International Pty. Ltd, pêtrol li gundê Yeni Evlerê, yê girêdayî bajarokê Surê, yê bajarê Amedê (Diyarbekir), dît.

Ji berê, di 1934 de, cara yekemîn bîreke pêtrolê li Tirkiye û Kurdistana Tirkiyê hati bû dîtin. Di 1937 de, karên jêolojîk tê de dest pê kiri bû, û di 1940 de yekemîn bîra pêtrolê li Êlihê (Batman), ya girêdayî Dersîmê (Tunceli), li Kurdistanê, hati bû kolan.
*(rudaw.net, 06.04.2018)*

**PARTIYEKE TIRKÎ LI DIJÎ REWŞA AWARTE**
Partiya tirkî ya dijberiyê, CHP (sosyal-dêmokrat), çalakî li 81 bajarên Tirkiyê û Kurdistanê kirin, ji bo riswakirina (protêsto) rewşa awarte (istisnaî) ku ji aliyê hukûmeta tirkî hati bû daxuyandin (îlan kirin) (li bultenên me yên buhurî binêre).
*(rudaw.net, 16.04.2018)*

**MAFÊN ZAROKAN TÊN PELIXANDIN**
***Di 23 Nîsan de***, bi hinceta (munasebet) Roja Zarok, sendîkaya mamosteyan li Tirkiyê, "Eğitim Sen", rapporek li ser mafên zarokan li vî welatî weşand: Di 10 salên dawîn de, ev pelixandin 3 caran bilind bûn. Jimara zarokên ku kar dikin gihajt 2 milyonan. 97,4% ji zarokên keç nikarin biçin dibistanê, ji bo ku ew tên zewicandin.

Enstituya Statîstîkan li Tirkiyê "TUIK" jî daxuyand ku di 10 salên dawîn de, 482.908 keçên zarok hatin zewicandin, û ku di 6 salên dawîn de 142.298 keçên din bûne dê.

Rappor dibêje jî ku Tirkiye di rêza 3mîn a lîsta pelixandina mafên zarokan li cihanê ye: Ji 6 kurran 1 tê pelixandin. 70% ji wan ji 11 salî piçûktir in.

Li gora wezareta tirkî ya dadê, her sal 8.000 zarok ji aliyê cinsî tên li dû ketin.

Rappora ECPAT, ya sala 2015, dibêje ku nuha 700 zarok, tevî diyên xwe, li zîndanê ne.
*(rudaw.net, 24.04.2018)*

**ERDHEJ**
***Di 24 Nîsan de***, demjimêr 3.34, erdhejeke sivik li bajarokê Semisadê, yê girêdayî Semsûrê, li Kurdistana Tirkiyê, bi kûrahiya 14 km û 5.4 pileyan, bû. 13 kes bi sivikî birîndar bûn. Rûniştevanên Amed, Mêrdîn û Êlihê (Dersim) jî pê hest kir.
*(rudaw.net, 24.04.2018)*

# KURDISTANA IRAQÊ

**DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ**

***Qeretepe***
Pevçûn di navbera leşkerê iraqî û şervanên Dewleta Islamî de, li sînorê bajarokê Qeretepê, yê parêzgeha (wilayet) iraqî ya Diyale, bûn. Sîvîlek hat kuştin û 3 jî birîndar bûn.

Di Cotmeh 2017 de, Qeretepe ji aliyê hêzên şervanên kurd, "Pêşmerge", hati bû çavdêrî (kontrol) kirin. Lê, piştre, ew ji aliyê hukûmeta iraqî hat stendin.

Qeretepe yek ji navçeyên Kurdistanê ku li derveyî desthilata hukûmeta Kurdistanê ne û ku ji aliyê hukûmeta iraqî tên bi rê ve birin e.
*(rudaw.net, 04.04.2018)*

***Daqûq***
***Di 05 Nîsan 2018 de***, bi şev, Dewleta Islamî êrîşî leşkerê iraqî, li gundê Kobanê, li bajarokê Daqûqê, yê parêzgeha kurdî ya Kerkûkê, kir. Tu daxuyaniyeke zelal li ser qurbanan ne hat kirin.
Ji berê, navçeya Kerkûkê ji aliyê Pêşmergeyên kurd dihat çavdêrî kirin, lê nuha ew girêdayî leşkerê iraqî ye.
*(rudaw.net, 06.04.2018)*

***Diyale***
Berdevkê polîsê Diyale li konfêranseke çapemeniyê daxuyand ku hucreyên razayî yên şervanên Dewleta Islamî tecrube dikin ku li her du bajarokên Bihriz û Kenanê belav bibin.

Li gora servîsên dizzî yên iraqî, jimara şervanên Dewleta Islamî li çiyayê Hemrînê û li parêzgeya Diyale digihêje 1.800.
*(rudaw.net, 06 û 28.04.2018)*

***Xaneqîn***
***Di 12 Nîsan de***, erebeyeke bombekirî li ser karwaneke polîsan teqiya. Polîsek hat kuştin. Tê pêşbînî (texmîn) kirin ku ew karekî Dewleta Islamî bû.
*(rudaw.net, 12.04.2018)*

**30mîn SERSALIYA ENFALÊ (NIJADKUJIYA KURDÎ)**
***Di 09 Sibat 1988 de***, rejîma iraqî ya partiya "Be'is" qonaxa yekemîn a nijadkujiya (qetliam) kurdî, ya bi navê "Enfal"ê, dest pê kiri bû. Û 06 Hezîran 1988 dawiya qonaxa 3mîn a vê nijadkujiyê bû. Bi hezaran kes hati bûn kuştin û nêzîkî 5.000 gund hati bûn têk birin (xerab kirin).

Weka her sal, merasîmên bibîranîna vê nijadkujiyê li Çemçemal û Hewlêrê bûn.
*(rudaw.net, 14.04.2018)*

**EWLEHIYA ÎRANÎ 4 KURDAN DIKUJE Û BIRÎNDAR DIKE**
***Di 07 Nîsan de***, li bajarokê Şewalê, li sînorê Kurdistana Iraq û Îranê, polîsê îranî (Pasdar) agir berda 4 cuhanên ji Kurdistana Iraqê, ku li Kelarê dimînin. Yek ji wan hat kuştin û yên din jî birîndar bûn. Ew ji bo nêçîrê çû bûn wê derê.
*(rudaw.net, 09.04.2018)*

**RÊXISTINEK ALÎKARIYA ZAROKÊN HEJAR DIKE**
Li parêzgeha Duhokê, Rêxistina Alîkariyê ya Kurdî û Amerîkî alîkariya zarokên malbatên hejar (feqîr) dike ku vegerin dibistanê û masrafên wan dide.

Li gora staîstîkan, di 2010 de, 1.354 zarok li navenda Duhokê kar dikir. Lê, ji sedema borana (krîz) aborî, jimara penaberan tê de bilind bû û ya van zarokên jorîn gelek bilindtir bû.
*(rudaw.net, 27.04.2018)*

**SEREDANÊN KURDISTANÊ**

***Kurdistana Tirkiyê***



***Di 07 Nîsan 2018 de***, serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, pêşwaziya şandeke bilind a partiya kurdî li Tirkiyê, HDP, kir. Ew ji van kesan pêk hati bû: Pervin Buldan, Hev-Serok; û ev parlementer: Osman Baydemir, Feleknas Uca, Imam Taşçier û Berdan Öztürk.

Şand çû seredana serokwezîr Nêçîrvan Berzanî, bi hinceta wefata birayê wî Dilovan, û çend partiyên ramyariyê (siyasî) jî.

Bi hinceta vê wefatê, merasîmeke mezzin li Hewlêrê hat pêk anîn û peyamên sersaxiyê ji welatên cihê li cihanê hatin şandin.
*(Rudaw.net, avestakurd.net, 07.04.2018)*

***Amerîka***
***Di 11 Nîsan de***, Nêçîrvan Berzanî pêşwaziya balyozê (sefîr) amerîkî li Iraqê, Douglas Silliman, û şanda wî kir. Bi Berzanî re cîgirê wî, Qubad Talabanî, û konsulê giştî yê amerîkî li Hewlêrê, Ken Gros, hebûn. Wan pêşeroja navçeyê, nemaze hilbijartinên nêzîk li Iraqê, û

metirsiya (tehlike) vegera Dewleta Islamî gotûbêj kirin.
*(rudaw.net, 11.04.2018)*

***Di 16 Nîsan de***, bi hinceta cêjna Kurdên êzdî, Çarşema Sor, şandek ji balyozxaneya (sefaretxane) amerîkî li Bexdadê û konsulxaneya wê li Hewlêrê çû peresthega wan, Lalişê.
*(rudaw.net, 17.04.2018)*

***Yekîtiya Ewropî***

Rawêjkarê (muşawir) Encumena Ewlehiya Kurdistanê, Mesûr Berzanî, pêşwaziya şandeke Yekîtiya Ewropî ku bi çaksaziyan (rêform) xerîk (mijûl) dibe, bi serokatiya Marx Writer, kir.

Writer agahdarî li ser yaneya (équipe) xwe ku bi tevahiya Iraqê xerîk (mijûl) dibe dan. Wî got ku ew alîkarî di warên têknîk, perwerde, rêxistin, çaksazî, pêşketina stratêjîk û ewlehiyê (emniyyet) de alîkarî dike. Wî got ku, li gora navçeyên din ên Iraqê, ewlehiya Kurdistanê di asteke (sewiye) baş de ye.
*(rudaw.net, 12.04.2018)*

***Almanya***

Serokwezîr Nêçîrvan Berzanî pêşwaziya wezîrê alman ê alîkariyên aborî û pêşdebirinê, Gerd Muller, û komeke parlementerên alman kir. Wezîr got ku ewê alîkariya leşkerî û mirovî ji Kurdistanê re bajo (dewam bike). Wî pesna Pêşmerge û gelê kurd di şerrê Dewleta Islamî de da û rola serokwezîrê Kurdistanê di normalkirina pêwendiyên di navbera Hewlêr û Bexdadê de bilind nirxand. Bi ser de jî, wan rewşa penaberên êzdî û fille gotûbêj kir.
*(rudaw.net, 22.04.2018)*

***Ostralya***

***Di 23 Nîsan de***, Nêçîrvan Berzanî pêşwaziya balyoza Ostralya li Iraqê, Joanne Loundes, û şanda wê kir. Wê dilxweşiya xwe ji bo rewşa aram a Kurdistanê, liberxwedana wê li dijî têrrorê, pêşwazîkirina penaberan û dyaloga wê bi Bexdadê re nîşan da.
*(rudaw.net, 23.04.2018)*

## SEREDANÊN DERVE

***Istanbul***

***Di 16 Nîsan 2018 de***, şandeke Kurdistanê çû Istanbulê, li Tirkiyê, ji bo beşdarbûna Kongreya Aborî ya Cihanî (Global Economis Congress". Ew ji wezîrê planê, Elî sindî, berpirsiyarê pêwendiyên bi Tirkiyê re, Dr. Ebdul-Selam Herkî, û çend berpirsiyarên din pêk hatiye.

Ewê kongre heta 19 Nîsan bajo. Ji 3.000 kesan bêtir, ji 170 welatan, beşdar bûn û serokê tirk, Recep Tayyıp Erdoğan, axaftinek kir û piştre pêşwaziya şanda kurdî kir.
*(rudaw.net, 16.04.2018)*

## BAZARGANÎ BI TIRKIYÊ RE 20% KÊM DIBE

Bazargan û ajoyên (şoffor) ku di navbera Kurdistana Tirkiyê û Iraqê de kar dikin daxuyand ku li gora salên berê, ev bazarganî 20% kêm bûye. Ev yek ji sedema bilindbûna bacan (taxes).

Ji 32.000 bazargan bêtir di navbera van her du navçeyan de kar dikin.
*(rudaw.net, 07.04.2018)*

## HILBIJARTINÊN NÊZÎK LI IRAQÊ

***Di 18 Nîsan de***, ji sedema nêzîkbûna hilbijartinên parlementerî li Iraqê, ku ewê di 12 Gulan 2018 de bibin, 15 partiyên Kurdistanê li Hewlêrê belgeyeke bi navê "Peyama Rûmeta Hilbijartinan", ku ji 25 bendan pêk hatiye, wajo (imza) kir. Ev yek li bin çavdêriya Nimînendetiya Neteweyîn Yekbûyî li Iraqê (UNAMI).
*(rudaw.net, 18.04.2018)*

***Li Kerkûkê pankartên bi kurdî tên çirandin***

Li Kerkûkê, pankartên propaganda ji bo namezedên kurd di van hilbijartinan de hatin çirandin. Bilindkirina ala kurdî hat qedexe kirin. Lê namezedên tirkmen, ereb û fille rastî van êrîşan ne bûn.
*(rudaw.net, 19.04.2018)*

# KURDISTANA ÎRANÊ

## ERDHEJ



***Di 01 Nîsan 2018 de***, erdhejek bi pileya 5.3 Richter, li 8 km ji bajarê Serpêla Zehawê, li parêzgeha Kirmanşanê, bû. Li navçeyên Kirmanşan, Ilam, Sine û Urmiye, û li çend ciyên Kurdistana Iraqê, pê hat hest kirin. 53 kes birîndar bûn.

Ji berê jî, di 12. 11. 2017 de, erdhejeke mezzin, bi pileya 7.8 Richter, bû bû. Li navçeya Derbendîxanê pê hati bû hest kirin. 530 kes wefat kiri bû û 8.000 jî birîndar bû bûn.
*(rudaw.net, 02.04.2018)*

# KURDISTANA SÛRIYÊ

## REWŞA EFRÎNÊ

***Teqîn: 4 mirî û 1 birîndar***
Mînek li ser serbazên (esker) tirk, ku ji 18 Adar 2018 de çavdêriya Efrînê dikin (li bultena me ya buhurî binêre), teqiya. 4 kes mirin û 1 birîndar bû.

Piştî 58 rojên şerr, di 18 Adar 2018 de, leşkerê tirkî û Leşkerê Azad ê Sûrî Efrîn kontrol kir (Tevgera Şaxa Zeytûnê).
*(rudaw.net, 01.04.2018)*

***"YPG" şerrê leşkerê tirkî dike***

Şervanên kurd "YPG" daxuyand ku wan şerrê leşkerê tirkî û dijberiya sûrî ku nêzîkî wî ye li bajarokên Cindirês û Şera, û li gundên ku girêdayî wan in, kir û 12 kes kuştin û 3 birîndar kirin.
*(rudaw.net, 26.04.2018)*

***2 zarok li kampeke penaberan mirin***
Li kampa penaberan a Efrînê, 2 zarokên 16 û 5 salî, ji sedema nebûna dermanan, mirin.

Hîva Sor a Kurdî bangî rêxistinên navneteweyî kir ku alîkariya xelkê Efrînê bikin.
*(rudaw.net, 13.04.2018)*

***Guherandina dêmografîk***
Piştî ketina leşkerê tirkî û dijberiya sûrî nav Efrînê (li bultenên me yên buhurî binêre), guherandineke dêmokgrafîk dest pê kir: Ereb û Tirkmen li nav xaniyên Kurdan hatin bi cî kirin:

Li Cindirêsê, 50 malbatên berbajarê Şamê "Xûta" hatin bi cî kirin. Li gundê Qitmê, 15 malbatên ereb. Li gunde Kaxurê, ku girêdayî bajarokê Mabata ye, 3 malbatên ereb. Li bajarokê Reco: malbatên dijberiya sûrî li gundên Meydan Ikbisê û Mosaka hatin bi cî kirin.

Malbatên şervanên tirkmen, ên navçeya Ezazê, li du gundên Qurnê (girêdayî Bilbilê) û Bsûfanê (girêdayî Şêrawa) hatin bi cî kirin.

Bi ser de jî, komên çekdar ên girêdayî Tirkiyê nahêlin ku rûniştevanên bajarok û gundên vê navçeyê vegerin. Evên dawîn di rewşeke gelek xerab de dijîn. Ew bi rojan li çolê, li ber bendavan, dimînin.

Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê "ENKS", ku ne girêdayî şervanên kurd ên partiya PYD ye, kongreya xwe li bajarê Qamişlî, li Kurdistanê, kir. Fesla Yûsif, endama encumena serokatiya vê Encumenê, got ku guherandina dêmografîk li Efrînê nayê pejirandin (qebûl kirin) û ku ENKS ewê li dijî vê yekê bixebite. Û wê ragirtina endamên ENKSê ji aliyê PYD jî şermezar kir.
*(rudaw.net, 01 û 10.04.2018)*

Zilamên çekdar ên Sultan Murad, komeke dijberiya sûrî ku girêdayî leşkerê tirkî ye, 8 malbatên kurd neçar (mecbûr) kirin ku ji gundê Barava, yê girêdayî Şêra, derkevin û li yê Çeman bi cî bibin. Ev kom rûniştevanên gund radigire, GSM (Mobile)en wan distîne û seredanên di navbera birayan jî qedexe dike.
*(rudaw.net, 18.04.2018)*

Li bajarokê Raco, 130 malbatên ereb, ku ji berbajarê Şamê "Xûta" hatine qewirandin, hatine bi cî kirin. Li ser dîwarên Raco, ev rûniştevanên nuh bi erebî ev yek nivîsî: *"Xwedê xaniyekî ji yê me baştir da me".*

Bi tevayî, 5.000 malbatên ereb li bajarok û gundên Roca hatine bi cî kirin.
*(rudaw.net, 21 û 25.04.2018)*

***Di 21 Nîsan de***, ev çekdarên Sultan Murad hemî malbatên kurdî yên gundê Baravê qewirandin û li ciyê wan 9 malbatên ereb bi cî kirin. Wan tê de 5 zilam hiştin, ji bo ku xizmeta wan bikin.

Li gundê Baliya, yê girêdayî bajarokê Bilginê, dijberiya çekdar a girêdayî Tirkiyê nahêle ku rûniştevan vegerin. Ji 120 malbatan, bitenê 3 tê de mane. 15 malb atên ereb tê de hatine bi cî kirin.

Gundê Kotana, yê bajarokê Bilbilê, bicarek ji rûniştevanên xwe hat vala kirin. Nêzîkî 20 malbat li gundê Qerîgolê, 30 malbat li Efrînê û yên mayîn li bajarokên Nubul û El-Zehra, li bin çavdêriya leşkerê sûrî hatin bi cî kirin.
*(rudaw.net, 25 û 26.04.2018)*

***30% ji xelk bûn Ereb***
Piştî ev guherandina dêmografîk a mezzin, 30% ji xelkê Efrînê bûn Ereb. Ji Kurdên ku reviyan, bitenê 50% vegeriyan.

Komên çekdar ên Efrînê penaberên ereb ên cuhan dixin nav xwe.
*(avestakurd.net, 11.04.2018)*

***Ragirtin û êşkencekirina Kurdan***
***Di 30 Adar 2018 de***, çekdarên komên dijberiya sûrî, "Sultan Murad" û "Ehrar El-Şam", li Efrînê jineke kurd a rojnamevan û hundermend, Dilşan Qereçol, ragirt. Dr Sebrî Henan, 72 salî, ji 20 rojan de hatiye ragirtin. Endazyar (muhendis) Yeyha Eyûbî, 52 salî, ji mehekê de hatiye ragirtin û êşkence kirin. Ev bitenê çend nimûne (misal) ne. Gelek kesên din jî hatine ragirtin.

Ev komên dijberiyê dikevin nav malên kesên gûmanbar (bi şubhe), têlêfon "Mobile" û kompyûterên wan distînin, ji bo ku nikaribin wêneyên şerr li Efrînê bişînin.
*(rudaw.net, 02.04; avestakurd.net, 26.04.2018)*

***Penaber li Kurdistana Iraqê***
Ji dema vegirtina (işgal) navçeya Efrînê ji aliyê leşkerê tirkî û hevalbendên wî yên sûrî, hin rûniştevan ber bi Kurdistana Iraqê reviyan. Lê, ji sedema zorbûna vê riyê, herkes nikare biçe wê derê.
*(rudaw.net, 04.04.2018)*

***Penaberên Şiyê***

***Di 04 Adar 2018 de***, leşkerê tirkî bajarokê Şiyê, ku 40 km li Bakurê Efrînê ye, stend û da koma dijberiya sûrî ya jorîn, "Sultan Murad". Nuha, hin malbat vegeriyan wê derê, lê ev koma dijberiyê hebûnên wan didizze û difiroşe.

Li gundê Alkana, dijberiya sûrî ne hişt ku xelk vegere malên xwe û ji her malbatekê xwest ku 1.000 dolaran bide, ji bo ku karibe bikeve nav wî.
*(rudaw.net, 19 û 20.04.2018)*

***Bi giştî: 100.000 penaber***
Nêzîkî 100.000 rûniştevanên Efrînê ber bi Şehba, Şêrawa, Nubul û Zehra reviyan. Ew di rewşeke gelek xerab de dijîn.
*(rudaw.net, 30.04.2018)*

***Serokê zanîngehê tê ragirtin***
***Di 04 Nîsan de***, hêzên Leşkerê Azad ê Sûrî, komeke dijberiyê ku girêdayî Tirkiyê ye, serokê zanîngeha Efrînê, Dr. Ebdul-Mecîd Şêxo, li mala wî ragirt û ew bir bajarê Ezazê, ku ji aliyê vê dijberiyê û leşkerê tirkî hatiye çavdêrî kirin.

Dr. Şêxo li Efrînê, di 1951 de, bûye. Di 1973 de, ew çû Almanya û piştre Rûsya. Di 1988 de, wî li Rûsya doktora di rojnamevaniyê de stend. Wî gelek berhem bi kurdî ê erebî nivîsîne.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 08.04.2018)*

***Leşkerê sûrî xizmeta leşkerî farz dike***
***Di rojên pêşîn ên Nîsanê de***, leşkerê sûrî 40 cuhanên kurd li bajarokê Şehba, yê girêdayî Efrînê û ku ji aliyê hêzên kurdî "YPG" (Yekîneyên Parastina Gel) hatiye çavdêrî kirin, ragirtin û ew birin bajarokê Dêr Cemal, ji bo ku ew xizmeta leşkerî bikin. Vê yekê pirs (problêm) di navbera "YPG" û leşkerê sûrî de derxistin.

***Piştre***, 100 cuhanên kurd ên din jî xwe radestî (teslîm) vî leşkerî kir.
*(rudaw.net, 08.04.2018)*

***Xwepêşandan li Helebê ji bo Efrînê***
Rûniştevanên taxa kurdî ya Helebê, Şêx Meqsûd, ji bo Efrînê xwe pêşan da (meşiyan). Ev xwepêşandan ji aliyê "HPC" (Hêzên Parastina Cewherî), ku nêzîkî YPG ye, hat pêk anîn.
*(rudaw.net, 08.04.2018)*

***Tirkî û erebîkirina navê nexweşxaneyekê***




Navê kurdî yê nexweşxaneya Efrînê hat rakirin û dêlva wî navek bi erebî û tirkî hat danîn.
*(avestakurd.net, 14.04.2018)*

***Avahiyek dibe zîndan***
Komeke sûrî ya dijberiyê, ku serokatiya wê Ebû Rejeb dike, avahiya Birêvebiriya Xweser, a partiya kurdî PYD, kir zîndan. Qîrînên girtiyên ku li kîlerê tên êşkence kirin tên bihîstin.

Rûniştevanên Efrînê dibêjin ku li gelek gund û bajarokan gelek kes hatine ragirtin û êşkence kirin.
*(rudaw.net, 15.04.2018)*

***Semînerek li Hesîçê li ser Efrînê***
Li bajarê Hesîçê, li Kurdistana Sûriyê, semînerek li ser rewşa Efîn, Munbic, Til Rifet, Minix … hat kirin. Jimarek ji partiyên ramyariyî (siyasî), rêxistinên civakî, ronakbîr û serokên êlên (eşîr) kurdî û erebî beşdarî wê bûn.

Kesên ku ev semîner amede kir di rappora xwe de van amarên (reqem) jêrîn nîşan dan:

Ji dema êrîşên leşkerê tirkî li ser Efrînê di 20 Çile 2018 de, 501 kes mirin. 797 kes, ku piraniya wan jin û zarok in, birîndar bûn. Gelek mal hatin talan kirin û têk birin (xerab kirin). 45.000 xwendekar ji xwendinê bêpar (mehrûm) in. 48 dibistan hatin têk birin. 35 xwendekar û 2 mamoste hatin kuştin. 1.150 xwendekar ji xwendina bilind bêpar in. Ji kêmasî ve 200.000 rûniştevan bûne penaber. Li Efrînê guherandina dêmografîk bûye: Erebên Xûtaya Şamê tê de tên bi cî kirin.
*(rudaw.net, 21.04.2018)*

***Ragirtin û revandina Kurdên êzdî***
Komên çekdar 6 endamên malbateke kurd a êzdî li gundê Qîbarê ragirtin û ew birin ciyekî nenas.

Ji dema destpêka borana (krîz) sûrî de, rewşa Kurdên êzdî metirsîdar bû, lê ji dema hatina komên islamî de ew xerabtir bû.

Tê bawer kirin ku jimara wan 25.000 bû û ku ew li 21 gundên navçeya Efrînê dijiyan. Di 16 Adar 2018 de, wan dest pê kir ku birevin. Di 10 rojan de, hêzên dijberiyê 58 sîvîl, ku ji wan 26 êzdî, li gundê Qestel Cindo revandin. Ji bo azadkirina wan, ew ji her kesekî 5.000 dolaran dixwazin.
*(rudaw.net, 23 û 28.04.2018)*

***Ragirtina 15 kesan***
Komên çekdar ên girêdayî Tirkiyê 9 rûniştevanên gundên bajarokê Bilbilê: Qeregolê, Şêxurzê, Qaşa û Xelîlaka ragirtin.
*(rudaw.net, 23.04.2018)*

***Rizgarkirina doktorekî***
Piştî 4 meh zîndan, Dr. Ebdul-Mecîd Şêxo, serokê beşa wêjeyê (edebiyat) li zanîngeha Efrînê, ji aliyê çekdarên dijberiya sûrî, ku girêdayî Tirkiyê ye, hat azad kirin.

Di 1973 de, Şêxo çû bû Almanya, û ji wê derê Rûsya. Di 1988 de, wî li Mosko doktora di rojnamevaniyê de stend. Wî gelek berhem bi kurdî û erebî nivîsîne.
*(avestakurd.net, 26.04.2018)*

***Azadkirina 2 çalakvanên fêmînîst***
Dilşan Qereçol, wênekêş (fotograf) û çalakvaneke sîvîl, û Zozan Silêman, mamosteya muzîkê, li Efrînê hatin azad kirin. Dilşan li Efrînê, di 28 Adar 2018 de, û Zozand di 27 Nîsan 2018 de ji aliyê hêzên dijberiyê hati bûn ragirtin.
*(avestakurd.net, 29.04.2018)*

***Zîndaneke taybetî li Helebê***
Dijberiya sûrî zîndaneke taybetî li bajarê Ra'î, li nêzîkî Helebê, vekir û ew rûniştevanên Efrîn û derdorên wê tê de digire. Zîndan ji du beşan ava bûye. Yek ji bo zilaman û yekî jî ji bo jinan. Girtî li her duyan tên êşkence kirin.
*(rudaw.net, 28.04.2018)*

***Hunermendek û kurrî wî tên kuştin***
Çekdarên dijberiya sûrî hunermendê kurd Ebdulqadir Kilisli û kurrî wî kuştin. Hundermend 51 salî bû û ji gundê Berada, yê bajarokê Şêrawa, yê girêdayî Efrînê, bû.
*(rudaw.net, 30.04.2018)*

**REWŞA KOBANÎ**
3 sal piştî rizgarkirina Kobanî ji Dewleta Islamî, bajar paqij bûye, gelek ji kuçeyên wê hatine çêkirin û qîr kirin û avahiyên wê hatine çêkirin. Gelek avahiyên nuh tên ava kirin. Jiyana rûniştevanên wê ji nuh de asayî (normal) û aram bûye.
*(rudaw.net, 06.04.2018)*

**REWŞA BABÊ**
***Di 06 Nîsan de***, erebeyeke bombekirî li nêzîkî mizgeftekê, li bajarokê Babê, li Bakurê Helebê, teqiya. 8 sîvîl hatin kuştin û 20 birîndar bûn.

Ji 23 Sibat 2017 de, ev navçe ji aliyê leşkerê tirkî û dijberiya sûrî, di çarçeveya tevgera ku Tirkiyê navê wê kiriye "Mertala Firatê" de, hatiye çavdêrî kirin.

Di Adar 2018 de, bombeyek li nêzîkî buroya polîsê Babê taqiya bû. Sîvîlek hati bû kuştin û 5 jî birîndar bû bûn.
*(rudaw.net, 07.04.2018)*

**REWŞA MUNBICÊ**
***Di 15 Nîsan de***, komeke çekdar êrîşî buroya Encumena Leşkerî ya Munbicê kir. Piştî bersîvdayîna Encumenê, endamekî vê komê hat kuştin.

Di havîna 2016 de, di şerrê li dijî Dewleta Islamî de, bi alîkariya Amerîkiyan, Munbic bicarek ji aliyê Hêzên Sûriya Dêmokratîk (HSD), bi serokatiya YPG'ên kurdî, hati bû çavdêrî (kontrol) kirin.
*(rudaw.net, 16.04.2018)*

**LEŞKERÊ TIRKÎ 2 KURDAN LI GIRÊ SIPÎ BIRÎNDAR DIKE**
Jandarmên tirk, ku li sînorê Kurdistana Tirkiye û Sûriyê bi cî bûne, agir berda jineke pîr û zilamekî, dema ku wan li rezê (erdê çandinê) xwe kar dikir. Ew hatin birîndar kirin û birin nexweşxaneyê.
*(rudaw.net, 30.04.2018)*

**"HSD" KEÇEKE FILLE RIZGAR DIKIN**
Keçeke fille ji Iraqê, Ritta Hebîb, di ***07. 08. 2014 de*** ji aliyê çekdarên Dewleta Islamî, li bajarokê Hemdaniyyê, yê navçeya Nînewa, hati bû revandin. Piştre, wan ew bir Mûsilê û ji yek ji çekdarên xwe yê sûrî re firot. Ji wê demê de, ew li bajarê Qamişlî, li Kurdistana Sûriyê, jiya. Di ***05. 04. 2018*** de, ji aliyê Hêzên Sûriya Dêmokratîk "HSD", bi serokatiya YPG'ên kurdî, hat rizgar kirin û birin Hewlêrê, paytexta Kurdistana Iraqê.
*(rudaw.net, 06.04.2018)*

**"HSD" 4 GUNDÊN DÊR EL-ZORÊ RIZGAR DIKIN**
***Di 29 Nîsan 2018 de***, leşkerê sûrî êrîşî "HSD"ê, li Dêr El-Zorê, kir û 4 gundên li Rojavaya Firatê stendin. Lê ev hêz ew ji nuh de stendin.

Dêr El-Zor mezzintirîn parêzgeh (wilayet) li Sûriyê ye. Girîngtirîn bîrên pêtrol û gazê tê de ne.
*(rudaw.net, 30.04.2018)*

**"PYD" LI DIJÎ KURDÊN DIN**

***2 berpirsiyarên ENKSê tên ragirtin***
***Di 01 Nîsan 2018 de***, rêxistina mafên mirov, DAD, daxuyand ku çekdarên nenas Feysel Yûsif, hemahengê (coordinator) giştî yê "Tevgera Çaksazî"yê û endamê birêvebiriya giştî ya ENKSê (Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê), li mala wî, li bajarê Qamişlî, revand û ew bir ciyekî nenas.

DADê bangî rêxistinên neteweyî û navneteweyî kir ku zû bilivin, ji bo ku çarenivîsa (qeder) Feysel Yûsif zanibin û wî zû rizgar bikin.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 01.04.2018)*

***Di 13 Nîsan de***, li Qamişlî jî, Nîmet Dawîd, sekreterê ENKSê û yê Partiya Wekhevî ya Dêmokrat ya Kurdî li Sûriyê, li mala xwe hat revandin û birin ciyekê nenas. ENKSê bangî lihevkirineke ramyariyî (siyasî) kir.
*(avestakurd.net, 13 û 15.04.2018)*

Endamekî polîtburoya Partiya Dêmokratîk a Kurdî li Sûriyê "PDKS", Beşşar Emîn, ji BasNews re daxuyand (îlan kir) ku ji zû de yek ji birêvebirên partiya wî, Ebdul-Rehman Apo, ji aliyê PYD hatiye revandin û ku ew bawer dike ku wê ew radestî rejîma sûrî kiriye.
*(avestakurd.net, 16.04.2018)*

***Di 28 Nîsan de***, Feysel Yûsif hat azad kirin.
*(Rudaw.net, avestakurd.net, 28.04.2018)*

# NÛÇEYÊN NAVNETEWEYÎ

## SÛRIYE Û KURDISTANA SÛRIYÊ

***Civîna Tirkiye-Rûsya-Îranê***
***Di 04 Nîsan 2018 de***, civînek li ser Sûriyê, li Ankarê, di navbera serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan, serokê rûs Vladimir Putin û serokê îranî Hasan Rûhanî, de bû. Wezîrên karên derve yên van her sê welatan jî amade bûn.

Wan rewşa Efrînê, li Kurdistana Sûriyê, û ya berbajarê Şamê, "Xûta", giftûgo kirin û wan li ser yekbûna axa Sûriyê han da (israr kir). Serokê îranî got ku borana (krîz) sûrî nikare bi riya çekkan, lê bitenê bi hilbijartinên dêmokratîk, were çare kirin. Bi ser de jî, wî hebûna serbazên (esker) amerîkî li navçeyê rexne kir.
*(rudaw.net, 04.04.2018)*

***Şandeke brîtanî li Kurdistanê***
Şandeke Partiya Kar a brîtanî çû Kobanî û Qamişlî û rastî berpirsiyarên pêwendiyên derve yên Birêvebiriya Xweser (a partiya kurdî PYD) hat.
*(rudaw.net, 05.04.2018)*

***Daxuyaniya wezîrekî rûsî***

Wezîrê rûsî yê karên derve, Segey Lavrov, li konfêranseke çapemeniyê got ku divê ku Tirkiye çavdêrîkirina (kontrol) Efrînê bide hukûmeta sûrî û ku jixwe Tirkiyê tucar ne gotiye ku ewê leşkerê we li wê derê bimîne.
*(rudaw.net, 09.04.2018)*

***Trump: Esed heywan e!***

***Di 09 Nîsan 2018 de***, li ser twittera xwe, serokê amerîkî Donald Trump got ku serokê sûrî Beşşar El-Esed *"heywan e"*! Ev yek, ji bo ku wî çekkên kîmyayî avêtin ser barbajarê Şamê "Xûta" û jin û zarok kuştin.
*(rudaw.net, 09.04.2018)*

***Alîkariya UNê ji penaberan re***

***Di 10 Nîsan de***, li Hewlêrê, li Kurdistana Iraqê, konfêransek li ser penaberan, bi amadebûna konsulên wetalên biyanî, bû. Berpirsiyarê alîkariya mirovî yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî (U.N.) li Iraqê, Ramanathan Balakrişnan, tê de daxuyand ku di 2018 de, UNê nêzîkî 156 milyon dolar dan ji 600.000 penaberên li Kurdistana Iraqê bêtir.

Di heman rojê de, berpirsiyarê pêwendiyên derve yên hukûmeta Kurdistana Iraqê, Fellah Mustafa, daxuyand ku hukûmeta wî salane milyarek û 900 milyon dolaran dide penaberan û ku ji sedema vê yekê alîkariya navneteweyî ne pêwîst e.
*(rudaw.net, 10.04.2018)*

***Daxuyaniya Yekîtiya Ewropî***

***Di 15 Nîsan de***, 28 welatên endamên Yekîtiya Ewropî li Bruksêlê civiyan. Serokê fransî, Emmanuel Macron, amade bû. Wan daxuyand ku êrîşên leşkerê tirkî li ser Efrînê rewşa mirovî li Sûriyê xerabtir kir. Û wan got jî ku divê ku Yêkîtiya Ewropî roleke mezzintir li vî welatî bilîze.

Wezîrê tirk ji bo karên Yekîtiya Ewropî, Ömer Çelik, ev daxuyanî rexne kir û go ku helwesta vê Yekîtiyê ne berpirsiyar e.
*(rudaw.net, 16.04.2018)*

Serokê Parlementa Ewropî, Antonio Tajani, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku divê ku Yekîtiya Ewropî li Sûriye û Rojhilata Navîn amade be û ku divê ku hemahengiyek (coordination) di navbera Amerîka, Rûsya û Ewropa de hebe.
*(rudaw.net, 18.04.2018)*

***150 şervanên biyanî***

Nêzîkî 150 şervanên biyanî di nav HSDê (Hêzên Sûriya Dêmokratîk, ku YPG'yên kurdî bi rê ve dibin) de şerr dikin. Yek ji wan, Amerîkiyek, ku navê wî Arkêş Çemçemalî hatiye kirin, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku ev şervan ji 25 welatan tên. Ew li kampekî YPG, li nêzîkî bajarokê Til Temrê, li Kurdistana Sûriyê, dimînin.
*(rudaw.net, 24.04.2018)*

## TIRKIYE

***Rappora Yekîtiya Ewropî***

Yekîtiya Ewropî rappora xwe li ser namzediya Tirkiyê ji bo vê Yekîtiyê weşand. Ew tê de dibêje ku Tirkiye ji vê namzediyê gelek dûr ketiye û bi tundî pelixandinên wê yên mafên mirov, nebûna azadî û dadiyê li vî welatî rexne dike.
*(rudaw.net, 19.04.2018)*

## IRAQ Û KURDISTANA IRAQÊ

***300 gorên hevbeş***

Rojnameya amerîkî The Wall Street rapporek li ser gorên hevbeş li Iraqê amade kir: Heta nuha, 300 gorên hebeş tê de hatine dîtin. Hin ji wan vedigerin dema berê Dewleta Islamî.

Li gora berpirsiyara Rêxistina Şehîdên Iraqê, Nejîhe Şemmerî, 2/3yên van goran, ku tê de 5.000 laş hene, hatine dîtin. Nêzîkî salek piştî şerrê li dijî Dewleta Islamî, bi deh hezaran gor hîn jî di nav gorên hevbeş de ne.
*(rudaw.net, 19.04.2018)*

***Rappora Human Rights Watch***

Rêxistina navneteweyî ya mafên mirov, Human rights Watch, rapporek li ser rewşa Iraqê weşand. Wê tê de got ku mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî bi girseyî (bi kitle) rûniştevanên bajarokê Beacê, li Rojavaya Mûsilê, ceza dikin, ji bo ku hin endamên malbatên wan girêdayî Dewleta Islamî ne.
*(rudaw.net, 28.04.2018)*

**AMERÎKA**

***Şerr li dijî Dewleta Islamî***
Li konfêranseke çapemeniyê li Washingtonê, berdevka wezareta amerîkî ya karên derve, Heather Nauert, daxuyand ku ewê welatê wê têkoşîna xwe li dijî Dewleta Islamî, li tenişta hukûmetên Kurdistana Iraqê û Iraqê, bajo (dewam bike).
*(rudaw.net, 21.04.2018)*

**KURDEK CÎGIRÊ SEROKÊ "DEMYC"**
***Di 18 Nîsan 2018 de***, 26mîn Kongreya Civata Cuhanên Dêmokrat ên Ewropa (DEMYC: Democrat Youth Community of Europe) bû. Xortekî kurd, Fellah Hesen, bû cîgirê 1mîn ê serokê wê.

Di DEMYC de 35 rêxistinên ramyariyî (siyasî), ji 25 welatên Ewropa, û ji milyonek bêtir endamên wê hene.
*(rudaw.net, 18.04.2018)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ LI CIHANÊ

**DUBAY**

***Pêşangeha wênekêşeke jin***
Pêşangeheke wênekêşiyê (peinture) li Dubay vebû. 17 wênekêş, ji 15 welatan li cihanê, beşdarî wê bûn. Hunermendeke jin a bajarê Dêrikê, li Kurdistana Sûriyê, Nûşîn Xeyreddîn, bi 3 tabloyên bi navên kurdî beşdar bû: Ehmedê Xanî, Welat û Buhar.
*(rudaw.net, 06.04.2018)*

**FRANSA**

***Fîlmek li Fêstivala Cannes***
Fîlma kurdî ya kurt, "Rûmet", a fîlmçêker Kamiran Bêtasî, ya şirketa Loran Medya, ji bo beşdarbûna Fêstivala Cannes, ku ewê ji 08 heta 19 Gulan 2018 bi rê ve biçe, hat bijartin. Û ewê li ser entrênêtê jî were nîşan dan.

Salih Kevirbirî, yek ji berpirsiyarên Loran Medya û birêvebirê vê fîlmê, babeta wê ravekir: Zilamekî ku solan boyax dike, Findî, 75 salî, nema rengan ji hev derdixîne. Zarokek, Reşko, ku li bal çayfiroşekî kar dike, alîkariya wî dike ku van rengan nas bike. Çîroka vê fîlmê rast e û li Zaxo, li Kurdistanê Iraqê, derbas dibe.
*(rudaw.net, 09.04.2018)*

**KURDISTANA IRAQÊ**

***Ansîklopêdiya zanîngehekê***
***Di 12 Nîsan 2018 de***, di merasîmekê de, ansîklopêdiya zanîngeha parêzgeha Duhokê hat belav kirin. 120 kes beşdarî nivîsîn û amadekirina wê bûn. Ew di 5 salan de hat amade kirin, ji 9 cildan pêk tê û tê de gelek agahdarî li ser navçeya Behdînanê hene. Biryar hat stendin ku ew were wergerandin erebî.
*(rudaw.net, 13.04.2018)*

***Cêjna Kurdên êzdî li Lalişê***
***18 Nîsan*** cêjna ***"Çarşema Sor"***, a Kurdên ji ola êzdî, ye. Weka her sal, ew bi merasîmeke taybet li perestgeha Lalişê, li Kurdisana Iraqê, tê pîroz kirin.
*(rudaw.net, 18.04.2018)*

**KURDISTANA IRAQ Û ÎRANÊ**

***Tûrîsm bilind bû***
Ji 17 Adar heta 7 Nîsan 2018, bi hinceta (munasebet) Sersala Kurdî "Newroz"ê, 45.000 geştyar (tûrîst) ji Kurdistana Îranê û Îranê ji deriyên sînorî yên Başmax û Hacî Umranê derbas bûn û çûn Kurdistana Iraqê. Ev jimar 15% ji ya sala 2017 bêtir bû. Ev yek, ji bo ku îsal hukûmeta Kurdistana Iraqê baca (taxe) ketinê di Newrozê de rakir (ilxa kir).
*(rudaw.net, 13.04.2018)*

***6 pirtûk li ser Enfalê tên wergerandin ingilîzî***
***Di 20 Nîsan de***, nivîskar Arif Qurbanî, ji Kurdistana Iraqê, wergerandina bo ingilîzî ya 6 pirtûkên xwe li ser nijadkujiya kurdî ya salên 1980-1988, a bi navê "Enfal"ê, da nasîn.

Qurbanî li Kerkûkê di 1970 de bûye. Wî 40 pirtûk û jimareke mezzin ji gotaran (articles) nivîsîne.
*(rudaw.net, 21.04.2018)*

***Pêşangeheke gulan li Hewlêrê***
Pêşangeheke gulên Amsterdamê (Hollanda) 7 mehan li Hewlêrê vebû. Di 3 mehan de, 200.000 gul hatin firotin.
*(rudaw.net, 27.04.2018)*

***3 jin cillên kurdî diafirînin (designers)***
Li Suleymaniyê, jineke kurd a 46 salî, Hawar, û 2 keçên wê, Lawîn û Larîn, cillên kurdî yên jinan û zilaman çêdikin û nîşan didin.

Keça mezzin, Lawîn, yasa (huqûq) xwendiye û parêzer (avukat) e. Ya piçûk, Larîn, bazarganî li zanîngeha Suleymaniyê xwendiye. Ji bo ku bejna wê 170 cm e, ew gelek caran "mannequin" e jî.
*(rudaw.net, 27.04.2018)*

**KURDISTANA TIRKIYÊ**

***Jimara geştyaran li Mêrdînê bû 3 qat***
Mardîn navçeyeke bedew e û ji sedema ciyên xwe yên dîrokî û olî, gelek geştiyaran (tûrîst) dikişîne. Li gora Birêvebiriya Çand û Tûrîsmê ya Parêzgeha Mêrdînê, di 2018 de, li gora her du salên buhurî, jimara geştiyaran 300% bilind bû.
*(rudaw.net, 13.04.2018)*

***"Designer"ekî navneteweyî***
Sait Dalmış "designer"ekî navdar ê moda, ji navçeya Cizîrê, ye. Wî Xelata Brîtanî ya Oxfordê stend. Cillên wî li Tirkiyê û li 17 welatên ewropî hatin nîşan dan. 20 kes ji bo wî kar dikin.
*(rudaw.net, 15.04.2018)*

***Fêstivala Agirî li Ankara***
Navçeya Agirî, li Kurdistana Tirkiyê, fêstivalek li Ankara pêk anî, ji bo nasandina dewlemendiya çanda xwe, ji aliyê dîrokî, geştyariyî (rûrîstîk), çandî û hunerî.
*(rudaw.net, 15.04.2018)*

***Atlêteke navneteweyî ya bazdanê (course)***
Derya Kunur, 18 salî, xwendekareke Dibistana Bilind a Werzişê (Sport), ya Zanîngeha Mûşê, li Kurdistana Tirkiyê. Wê xelatên cihê li pêşbaziyên (concours) navneteweyî yên cihê stendine: Li Sirbistanê, li Şampyona Stêrkên Balkanê, ew di bazdana 2000 m. de bû 2mîn. Li Li Bursa, li Tirkiyê, bû şampyona Tirkiyê. Li Çêkya, li Şampyona Klubên Ewropa, bû 1mîn. Li Byêlorûsya, li bazdana navneteweyî, bû 1mîn.

Kunur vê werzişê ji 12 saliya xwe de dike. Mamoseyê wê alîkariya wê dike.
*(rudaw.net, 17.04.2018)*

***7 Xelat ji fîlmeke kurdî re li Istanbul û Ankara***
Fîlma kurdî "Xewna Bêreng", a derhêner Mehmet Ali Konar, xelatek li 37mîn Fêstivala Fîlm a Istanbulê stend. Ew kartêkirinên (te'sîr) şerrê salên 1990 li Kurdistana Tirkiyê li ser derûna (psychologie) zarokan dibêje.

Heman fîlmê 6 xelat li 29mîn Fêstivala Fîlm a Ankara stendin: 1) baştirîn film. 2) baştirîn sênaryo. 3) baştirîn wêne. 4) baştirîn muzîk. 5) baştirîn lîzvan. 6) baştirîn fîlma "siyade".
*(rudaw.net, 18 û 29.04.2018)*

***2 fîlmên kurdî li fêstivala Ankara***
***Di 23 Nîsan de***, Fêstivala Navneteweyî ya Fîlm li Ankara dest pê kir. 2 fîlmên kurdî, "Biryareke Zor" û "Xewna Bêreng" beşdarî wê bûn.
*(rudaw.net, 23.04.2018)*

***Pêşbaziya bedewbûna lawiran li Wanê***




Pêşbaziya (concours, musabeqe) pez, bizin û golikan li Wanê, li Kurdistanê, dest pê kir. Ev yek,

di çarçeveya 8mîn Pêşangeha Çandinê de. 29 lawirên (heywan) xelmilandî derketin ber "jury".
*(rudaw.net, 26.04.2018)*

***Pêşangeha gewheran li Amedê***

2mîn Pêşangeha Gewherên Mêzopotamya (bazin, hingulîsk …) li Amedê (Diyarbekir), Kurdistana Tirkiyê, dest pê kir. 100 şirketên Tirkiyê û Kurdistana Tirkiyê, û 150 ji Kurdistana Iraqê, beşdarî wê bûn.

Piraniya van 100 şirketan ên Kurdan in. "Ateliers"yên wan ji Ewropa heta Hindistanê hene. Xelk ji Sûriye, Îran û Kurdistana Iraqê jî hat.
*(rudaw.net, 28.04.2018)*

**KURDISTANA SÛRIYÊ**

***Yaneyeke jinan a fûtbolê li Kobanî***

Ji salan de bajarê Kobanî di rewşeke gelek zor de dijî. Li gel vê yekê, Birêvebiriya wê ya Perwerdeyê maçeke fûtbolê pêk anî. 6 yaneyên (équipes) jin, ên xwendekarên cuhan, ên 14 heta 18 salî, beşdarî wê bûn.
*(rudaw.net, 16.04.2018)*

***Cêjna Kurdên êzdî li Qamişlî***

Weka her sal li Kurdistana Sûriyê, Kurdên ji ola êzdî cêjna xwe ya Çarşema Sor pîroz kir.

Li gundê Quzleçoxê, yê navçeya Qamişlî, mêvanên ji Efrînê beşdarî vê cêjnê bûn.
*(rudaw.net, 18.04.2018)*

**SWÊD**

***Pirtûkeke nivîskarekê***

Nivîskar û lêgera jin a kurd, Mahabad Qeredaxî, pirtûkek bi navê "Afretîzm" (Fêmînîsm) nivîsî. Ew ji 360 rûpelan pêk hatiye û dîroka têkoşîna sedsalî (1918-2018) ya jinên Kurdistana Iraqê dibêje. Ewê di nêzîk de were weşandin.

Heta nuha, Qeredaxî 34 pirtûk nivîsîne. Wê li beşên sosyolojî, psîkolojî û perwerdeyê, li zanîngeha Stockholmê, li Swêdê, xwendiye. Nuha, ew ziman û wêjeya (edebiyat) ingilîzî li zanîngeha Sabisê dixwîne.
*(rudaw.net, 21.04.2018)*

***Straneke kurdî bi awayê "rock"***

Pyanîstê kurd Saman Taha, ku li Swêdê dijî, muzîka kurdî ya straneke Hesen Zîrek guherand û kir "rock".

Ev diyarde (phénomène) li nav hundermendên ku li derveyî Kurdistanê dijîn belav bûye. Ew muzîka kurdî dikin jazz, symphonie, piano …
*(rudaw.net, 28.04.2018)*

*Ev bulten bi 4 zimanan, kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî tê weşandin û bi e.mail ji nêzîkî 2.000 navnîşanan re tê şandin. Ew bi kurdî û fransî ji aliyê Pervîn Cemîl tê nivîsîn û ji aliyê Jona Mustafa bo hollandî û Chirine Gerits bo ingilîzî tê wergerandin. Montaja wê ji aliyê Jona Mustafa tê kirin. Rênas Newrozî wê li ser CD'yan tomar (qeyd) dike û datîne ser facebook û malpera entêrnêtê, yên Buroya Kurdî. Ew li ser kaxiz jî tê çap kirin û danîn nav pirtûkxaneya Buroyê, ku tê de berhemên bi nêzîkî 10 zimanan hene.*






**Vlaamse Gemeenschapscommissie Brussel**